Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 124
6'ê Çileya Pêşîn a 2009
Buha: 150 Tûmen

# agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Bi hilkevta xwandekar

## 3 Partiyên Rojhilatê Kurdistanê Daxuyaniyek Hevbeş Dan Çapemeniyê...

R. 4

# LI BEREBERÊ 16Ê SERMAWEZÊ, ZEXT LI SER XWENDEKARAN DIJWARTIR BÛYE



**Agirî:** 3 Partiyên Rojhilatê Kurdistanê (partiya Dempkrat ya Kurkdistana Îranê, Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê û Partiya Azadiya Kurdistanê) di daxuyaniyeke hevbeş de, digel piştgirî li xebata bizava xwendekarî a Îran û Kurdistanê, daxwaz ji xwendekarên azadîxwaz û welatparêz ên hemû neteweyên Îranê kirine ku Roja Xwendekar bi girseyî rêve bibin.

Li bereberê 16ê Sermawez Roja Xwendekar li Îranê (7ê Kanûna 2009a), zext û zordariya li ser xwendekaran zêde bûye



## Sekreterê Giştî Yê PDKÎ Nameyek Bo Sekreterê Giştî Yê Neteweyên Yekbûyî, Ban Kî Mon Şand



Ji ber pêla berfireh a binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê Mistefa Hicrî, nameyek ji bo Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî Ban Kî Mon, şand.

Mistefa Hicrî di nameya xwe de balê dikşîne ser cudahîdanan û binpêkirina sîstematîk a mafê mirovan di 30 sal desthilatdariya rêjîma Komara Îslamî a Îranê de û piştre amajê dide ser serkutên berfireh ên xelkê bi sedema nerazîbûnên vê dawiyê li Îranê.

Sekreterê Giştî yê PDKÎ herwiha bala Sekreterê Giştî yê RNY dikşîne ser rewşa dijwar a binpêkirina mafê mirovan li Kurdistana Îranê û pêla berfireh a darvekirina ciwanên Kurd. Mistefa Hicrî daxwaz dike ku ji bo vê yekê NY gavên bilez û cidî biavêje. *Deqa nameyê di Rûpela 6 ya vê hejmara Agirî de bixwînin...*

### Mistefa Hicrî:

# "DİBE KU KOMARA ÎSLAMÎ Bİ RÊYA SERKUT, TİRS Û XOFÊ TEVGERA NERAZÛBÛNA XELKÊ Bİ AWAYEKÎ DEMKÎ BÊDENG BIKE, LÊ PÊVAJOYA NTHA NAVEGERE"

**Agirî: Sekreterê Giştî yê PDKÎ Mistefa Hicrî çend roj berî niha di hevpeyvîneke taybet û berfireh de digel televizyona 'TISHK', derbarê pirsên rojev ên herêmê, Îran û cîhanê axivî û siyaset û helwêstên dawî ên nû yên wê partiyê şirove kir. Duheftînama Agirî bi hewce zanî beşên giring ên wê hevpeyvînê biweşîne ku li jêr dikeve ber bala we xwendevanan:**

Di destpêka hevpeyvînê de pêşkêşkarê 'TISHTK' TV bal kişand ser xenîşandana vê dawiyê ya xelkê li dijî rêjîma Komara Îslamî a Îranê. Ji ber ku di sî salên borî de rêjîma Komara Îslamî di hilkevt û rêûresmên cur bi cur de bi taybet di rêûresma 13ê Xezelwera îsal (4ê Mijdara 2009) de ku ji aliyê wê rejîmê ve wek roja xebat li dijî Împeryalîzma cîhanî hatiye binavkirin û salverga dagirkirina balyozxana Amerîka ye, hewl dida xelkê rabikşîne ser cadeyan û daxwaz ji wan bike ku dirûşmên neman bo Amerîka û dirûşman li dijî Împeryalîzma cîhanî ku ew nav ji Amerîka re diyarî kirine, bidin. Lê di xwenîşandanên îsal yên xelkê de ku hatin ser cadeyan, cudahiyek zêde li gor salkên borî ên xwenîşanderan dihat dîtin û bihîstin. Di bersiva vê pirsê de, Mistefa Hicrî wiha axivî: "Derheqê dagirkirina balyozxana Amerîka 30 sal berî niha, PDKÎ di rewşa siyasî ya wê demê de, ev kiryara rêjîma Komara Îslamî mehkûm kir û ragehand ku ev kiryar li dijî usûl û pirensîpên navneteweyî ye. Dibe kêm grûp û kes hebin ku bala xwe dabin ser vê pirsê bi taybet jî di wê demê de, lê niha piştî 30 salan, piraniya ew kesên ku di rêjîma Komara Îslamî de dest hebûn û li wir amade bûn, gihîştine wê encamê ku ew kiryar, kirinek bû li dijî qazanc û berjewendiya neteweyên Îranê û berevajî çêkirina peywendî an xurtkirina peywendiyên navneteweyî û me dît piştî vê bûyerê peywendiyên Amerîka digel Îranê qut bûn."

Di doma bersiva vê pirsê de, Sekreterê Giştî yê PDKÎ balê dikşîne ser mesela meş û xwenîşandanên piştî ragehandina encama dehemîn gera hilbijartinên Serok Komarî di Îranê de û amaje da vê çendê ku di rojên destpêka van xwenpêşandanan de dirûşm gelek sade û rûyekî bûn û da zanîn: "Wê demê me ragehand ku ev dirûşm ne li qazancê xelkê Îranê ji bo derbazbûn li çengê Komara Îslamî ne. Ji ber ku li destpêka avabûna Komara Îslamî a Îranê herdem sextekarî di hilbijartinan de ji aliyê wê rêjîmê ve beşek ji siyasetên wê bûye û di 9



**Xelkê Îranê êdî tu hêviyek bi refom û çaksaziyan nemaye û eva yek ji xalên bihêz ên vê tevgerê ye, êdî dudilbûn nemaye û xelkê rêya durist ya xwe peyda kiriye û pêşve diçin.**

dewreyên berê yên hilbijartinên Serokkomariyê de jî berdewam destwerdan û sextekarî hatiye kirin. Ger em wisa bihesibînin ku Mûsewî li cihê Ehmedînejad deng bianiya, dîsa çi li pirsê nediguherî û xelkê Îranê çi bidest nedixist."

Rêzdar Hicrî diyar dike ku hêdî hêdî naveroka dirûşman hat guhertin û heta radeyekê tund û radîkaltir bûn û êdî dirûşmên wek 'neman bo Weliyê Feqîh' 'daxwaza azadî û dmeokrasî' dihatin guhdarîkirin û pirsa berevanîkirin ji Mûsewî û Kerûbî li gor xwenîşandanên berê heta qasek berçav dabezî û kêmreng bû. Sembol û hêmaya "kesk" di nav xelkê de kêmtir bibûn û bi kêmî jî dihat dîtin. Bi taybet di xwenîşandana 4ê Mijdara 2009an de, dirûşm û amadekariyên xwenîşananê bi tevahî hatine guhertin. Naveroka dirûşman vê carê di çarçoveyek pêkhateşikên de û ji bo hiloşandin û ji holê rakirina Komara Îslamî û damezrandina sîstemeke nû derket holê. Bi baweriya Mistefa Hicrî : "Beşdarên xwepêşandanan bi tevahî gihîştine vê encamê ku derbazbûn li çengê vê rêjîmê û ev hemû stemkirin û zordariya ku bi ser xelkê hatiye sepandin, rûxan û nemana Komara Îslamî a Îranê û avakirina hikûmeteke demokratîk e ku têde ol ji hikûmetê cuda be, eslek bi navê Wilayeta Feqîh tunebe û bi awayekî gişî rêjîma Komara Îslamî a Îranê ji nemîne."

Herçiqas dirûşmdan – ku li gor berê tundtir bûn – û bêserûberiya xwenîşanderan wek du xalên lawaz ên xwenîşandana 4ê Mijdara 2009an tên hesibandin, lê Sekreterê Giştî yê PDKÎ da xuyakirin ku li gor meş û xwenîşandanên çend mehên berê, di xwepêşandana 4ê Mijdarê de herî kêm dirûşm bo piştevanî li Mûsewî û Kerûbî hatin dan, lê xwenîşandana 4ê Mijdarê xwedî giringiyek taybet bû û nerînên xwe wiha anîn ziman: "Xwenîşandan û dirûşmên 4ê Mijdarê ên xwepêşandanên opozîsyonê hemû nûçeyên xwenîşandanan ber bi aliyê kişandin û bi kêmî behsa xwepêşandanên alîgirên Komara Îslamî a Îranê dihat kirin."

Serkeftina Şoreşa Gelê Îranê di sala 1979an de, encama xwenîşandanên berdewam û berfireh ên xelkê bêzar bûyî ji dîktatoriya paşatiyê bû, di destpêkê de meş û xwepêşandan bertesk bûn, lê car bi car zêde û berfirehtir bûn û hemû bajarên biçûk û mezin li xwe girt û rêjîma paşatiyê di encama wan xwenîşandaên girseyî ên xelkê nerazî de hat hiloşandin. Derbarê berfirehbûna xwenîşandanên vê carê li Îranê bo deverên din û bajarên mezin yên wî welatî, Hicrî wiha da zanîn: "Ew xwepêşandanên ku me di vê heyamê de li welatên cîran dîtine, di bingeh de ji bajarên mezin ve destpê dikin û şekl digrin û hêdî hêdî xurt û berfireh dibin û ger dirûşm û daxwaziyên xwenîşandanan dabînkirina qazanc û xwestekên çîn û texên cur bi cur ên civakê bin, wê demê dê wan jî tevlî xwepêşandanan bike û bi curekê xelkê girêdayî xwenîşandana dike û hêdî hêdî mezin û berfirehtir jî dibe û heta digihe bajarên biçûk jî."

Sekreterê Giştî yê PDKÎ diyar kir, çaverê tê kirin di pêşerojê de xelkê bajarên mezin yên din ên Îranê dest bi xwepêşandan bikin û dijkiryaran li hemberî Komara Îslamî bidin xuyakirin û gav bi gav ev xwenîşandan û dijkiryar bighin bajarên biçûk jî.

Derheq pêşeroja meş û xwenîşandanên niha di Îranê de, Mistefa Hicrî nerînên xwe wiha rave dike: "Dibe ku ji ber serkutên tund û

dijwartir ji yên ku heta niha me dîtine, bi awayekî demkî tevgera nerazûbûna xelkê bêdeng be, lê pêvajoya niha navegere." Hicrî herwiha bal kişand ser derbazbûna xelkê ji reformîstan û rojeva dahatûya tevgera nerazîbûna xelkê Îranê û da xuyakirin: "Xelkê êdî tu hêviyek bi refom û çaksaziyan nemaye û eva yek ji xalên bihêz ên vê tevgerê ye, êdî dudilbûn nemaye û xelkê rêya durist ya xwe peyda kiriye û pêşve diçin. Ger di destpêkê de rêberî û serkêşiya vê tevgerê di destê mohreyên rêjîma Komara Îslamî de bû û pilandanîn û rêvebirina xwepêşandana di stûyê wan de bû, lê me dît ku di xwenîşandana 4ê Mijdara 2009an de, rêberî û serkêşiya meş û xwenîşandanan di destê xwepêşander û azadîxwazan bixwe de ye û ji ber vê yekê jî em dibînin ku dirûşm radîkaltir bûne û basa guhertina giştî a sîstema Komara Îslamî derdikeve rojevê. Çiqas dirûşm tund û radkaltir bin, xelkek zêde tevlî xwepêşandanan dibe û bêguman wê demê dê gav bi gav ber bipêşve biçe."

Pêşkêşkarê televizyona 'TISHTK' ligel amajedan bi beşdarînekirina xelkê herêmên neteweyên bindest ên Îranê di xwepêşandanên vê dawiyê de û tundtirbûna serkutkirinê – bo nimûne darvekirina Êhsan Fetahiyan – û çekdarkirina Eşîran li parêzgehên neteweyên bindest, vê pirsê raberî Sekreterê Giştî yê PDKÎ dike ku çima ligel vê beşdarînekirinê, tepeserkirina xelkê û azadîxwazan di wan deveran de tundtir û berfirehtir e? Mistefa Hicrî di bersiv de, behsa du sedemên sereke dike, tirsa Komara Îslamî li tevlîbûna neteweyên bindest ên Îranê bi xwepêşandanan di wê demê de ku xwestekên wan li xwe bigre û herwiha dîtin û nerîna ewleyî a herdemî a rêjîma Îranê derheq wan herêman, bi taybet Kurdistanê, Hicrî wiha axivî: "Hemû demekê Komara Îslamî li xelkê xebatkar yê Kurdistan û netewên din ên Îranê ditirse ku nebe xwenîşandan û dijkiryarên wan ji bo hiloşandina

**"Komara Îslamî ya Îranê mijûl e proseya rûxan û hiloşîna xwe diqedîne, lewra ez bi pêwîst dizanim ku xelkê Îranê, opozîsyon, azadîxwazên Îranê, bi taybet neteweyên Îranê gavan hilbigrin û dakevin nav qada xebatê û ji bo lawazkirina herçiqas zêde a Komara Îslamî û hiloşandian bileztir a wê rêjîmê hewlê bidin heta xesara wê ji vê çendê qurstir nebe."**

Komara Îslamî bikare alîkariya wan tevgera nerazîbûnê bike ku li Tehranê destpê kiriye. Ji bo vê yekê jî em dibînin ku her liv û tevgereke biçûk a neteweyên Îranê di xalên sînorî de, wek Belûçistan, Ehwaz, Kurdistan û Turkmenistanê, heta bi tometên gellek qurstir ji beşdarên xwepêşandanan bi ser wan tê sepandin û ew bi cezayên giran û demdirêj yên girtîgehê û îdamê mehkûm kirine. Ev metoda serkut û qirkirinê ji destpêka damezrandina Komara Îslamî her hebûye û pêngav bi pêngav ku ku nerazîbûn û dijkiryar li Tehranê zêde dibe, metirsiyek zêde cesteyê Komara Îslamî dadigre. Lewra bi armanca ku pêşiya xelkê bajarên sînorî û bajarên neteweyên Îranê

**"Ew gefên ku heta niha ji aliyê Neteweyên Yekbûyî, Ewrûpa û Amerîka li Îranê hatine kirin ewqas ne tund bûne û nekarîne bi bandor bin"**

bigre, vê rewşa tirs û xofê pêk tîne. Ji ber ku xelkê bajarên netewên Îranê bi sedema ew zilm û stema netewî ku bi ser wan de hatiye sepandin, gellek ji xelkê Tehranê zêde birîndar in."

Mijarek din ya wê hevpeyvînê, pirsa destwerdanên Komara Îslamî a Îranê di hundirê karûbarên welatên cîran û herêmê û alozîafirandin û meşandina terorê û piştgirî li hêzên terorîstî diyar dike, bi dirêjiya temenê vê rêjîmê destwerdan di karûbarên welatên herêmê, hergav beşek ji siyaseta wê rêjîmê bûye ku wek bingehek stiratejîk a Komara Îslamî bi navê 'şandina şoreşê bo derve' tê binavkirin, bi taybet li balyozxane û kunsolxaneyên xwe wek navendekê bo rênîşanîkirin û çekdarkirin û dazna zanyariyan bi terorîstan û hevkarî digel wan mifahê distîne. Eva beşek li bingehên Komara Îslamî a Îranê ye û ne tiştekî nû ye ku taze dest pê kiribe.

Bi baweriya Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Komara Îslamî van kiryaran tenê bi armanca parastina desthilata xwe dimeşîne. Derbarê bernama Etomî ya Îranê û riftara nerm a îdara Barak Obama derheq rêjîma Îranê û berdewambûna li ser xebatên meyandina Uraniyûmê Mistefa Hicrî nerînên PDKÎ wiha rave kir: "Gelek sal in û ji wê demê pêde ku pirsgirêka meyandina Uraniyûmê ji aliyê Komara Îslamî wek kirîzek derket rojevê, me ji raya giştî re ragehand û ronî kir ku Komara Îslamî tenê li parastina desthilata xwe difikire. Di derheq vê pirsgirêkê de, Komara Îslamî bawer e ku Amerîka, Ewrûpa û hemû herêm dijminê wê rêjîmê ye, lewra li hemberî van dijminan ku beşek ji wan bi çekên navikî teyar in, divê hêzek hebe ku bikare xwe biparêze û bidestxistina çeka Etomî wek çareseriyek bo vê kirîzê dizane. Tiştekî pir normal e ku Komara Îslamî ya Îranê li rêya gihîştin bi vê armancê tevbigere û her ev kar jî encam daye. Çima Komara Îslamî dest ji bernama xwe ya Etomî bernade û heta bi wan soz û qewlan paybend nine ku li ber çavê cîhanê dide û piştre pişt guh diavêje û bîra xwe dibe. Sedema vê ew e ku di bingeh de, Komara Îslamî ne bawer e ku meyandina Uraniyûmê bisekinîne, heta demekê ku bombeya navikî bidest bixe. Meger wê demê ku fehm bike gef ewqas tund in ku dikare rêjîma ku ew bi hemû awayî hewla parastina wê didin, ji nav biçe. Lê ew gefên ku heta niha ji aliyê Neteweyên Yekbûyî, Ewrûpa û Amerîka li Îranê hatine kirin ewqas ne tund bûne û nekarîne bi bandor bin, heta wî cihî ku Komara Îslamî bîne ser wê bawerê ku ku dibe bihiloşe, lewra derbarê vê pirsgirêkê berdewam mijûlî destbidestkirin û manordanan e."

Li gor Mistefa Hicrî, Komara Îslamî ya Îranê riftara nerm a niha ya Amerîka digel Îranê û amadebûna îdara Obama bo gotûbêjên rasterast digel Komara Îslamî, wek xalek erênî bi xwe dihesibîne û wek têkçûn û xala lawaz ya Ewrûpa û Amerîka pênase dike, lewra berdewam demê dikuje û bernamên xwe yên meyandina Uraniyûmê didomîne. Heta netirse ku gefên Rojava dê bibin sedema hiloşandina wê rejîmê, dê bernama xwe ya Etomî her bidomîne.

Di dawiya vê hevpeyvînê de Mistefa Hicrî axavtina xwe wiha qedand: "Ligel wan hemû siyasetên serkutker, afirandina kirîz û pirsgirêkan û dahênana dijminan li hundir û derve, emrê Komara Îslamî ber bi dawiyê diçe. Bi baweriya min Komara Îslamî ya Îranê mijûl e proseya rûxan û hiloşîna xwe diqedîne, lewra ez bi pêwîst dizanim ku xelkê Îranê, opozîsyon, azadîxwazên Îranê, bi taybet neteweyên Îranê gavan hilbigrin û dakevin nav qada xebatê û ji bo lawazkirina herçiqas zêde a Komara Îslamî û hiloşandian bileztir a wê rêjîmê hewlê bidin heta xesara wê ji vê çendê qurstir nebe."

### 3 Partiyên Rojhilatê Kurdistanê Daxuyaniyek Hevbeş Dan Çapemeniyê:

# WERİN EM RÊZ Lİ ROJA 16Ê SERMAWEZÊ BİGRİN

3 Partiyên Rojhilatê Kurdistanê (PDKÎ, Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê û Partiya Azadiya Kurdistanê) di daxuyaniyeke hevbeş de, daxwaz ji xwendekarên azadîxwaz û welatparêz ên hmû neteweyên Îranê kirine ku Roja Xwendekar bi girseyî rêve bibin.

Bizava Xwendekarî ya Îranê ji ber hebûna dîrokeke geş û ronî, herdem wijdana hişyar a ciwanên têgihîştî û mafxwaz ên welat bûye û di hemû demekê de rûbirûyê desthilata dîktator û serberedayî a Paşatiyê û Komara Îslamî hatiye û bi vî awayî hêza bizava ronakbîr û azadîxwazên Îranê bûye. Xebat û berxwedanên vê bizavê di hemû demekê de hêz û baweriya xelkê bêzarbûyî, desthilata dîktatoriyê hejandiye û handerek bûye bo wire û moraldan bi xelkê. Lewra jî rejîmên dîktator her ji destpêkê de heta niha bi serkut, îşkence, darvekirin, bêmafkirina wan ji xwendinê û heta darêtina pîlan û komployan bo lihev veqetandin û cudayîdanan di navbera wan de û bihêzkirin û ji navbirina wan berengarî digel wan de kirine, lê bi xweşî ve tu yek li van pîlan û komPloyan nekarîne ev keç û xortên netirs û têgihîştî ên gel bêdeng bike û serê wan nevî bikin.

Piştî ragehandina encama bi nav hilbijartina 10’ mîn gera Serok Komariyê di 13ê Hezîrana îsal de, bo careke din hêza xwendekarî bû hêza bizava pêkhateya meşên milyon kesî ên ciwanan û xelkê bêzarbûyî li ser rê û şeqamên Tehranê, loma jî ji berê zêdetir kete ber êrîş û tundûtûjiya rejîma Komara Îslamî. Di van rojane de ku demokrasîxwazên Îranê 16ê Sermawezê wek Roja Xwendekaran li Îranê bibîr tînin, xwendekarên Îranê di bin zext û zordariyên herî bêrehmane de ne û di rastî de zanîngeh kirine girtîgeha xwendekaran. Tenê di meha borî de, çend xwendekar şehîd kirine, zîndan tejî xwendekar kirine û roj nine komek li xwendekarên şoreşger li zanîngehê neyên derkirin an ji bo binkeyên organ û dezgehên serkutker neyên gazîkirin û gef li wan nehê xwarin. Komara Îslamî hemû hewla xwe dide ji bo ku bikare pêşiya çalakî û dijkiryarên xwendekaran di Roja Xwendekar ya îsal de de bigire. Ji aliyekî din ve xwendekar pêdagir in ku di wê rojê de bi lidarxistina meşan û dana dirûşman hevalên xwe ên şehîd û îdamkirî bibîr bînin, da ku bi vî awayî piştgirî û wefadariya xwe ji bo xwendekarên girtî dubare bikin û hêrs û kerb û bêzariya xwe li dijî rêjîma paşverû ya Komara Îslamî bikujê hevalên wan ên darvekirî bidin xuyakirin.

**Xwendekarên xebatkar û azadîxwaz!**

Niha dema wê yekê hatiye ku bo rakişandina herçiqas zêde a neteweyên mafxwaz ên Îranê di bernameyeke ron de piştgiriya xwe li mafên neteweyan rabigehînin. Dibe şêweyê herî guncaw û minasib diyarîkirina mafên siyasî yên wan netewan û damezrandina hikûmeteke demokratîk a federal di Îranê de be. Hikûmeteke wiha di çarçova qanûnê de baştirîn ewle û garantiya parastina mafê wan netewan e ku zêdetirîn û zulmjêkirîtirîn beşa nifûsa Îranê pêk tînin. Di rastî de demokrasî jî bê li berçavgirtina wan netewan û wan mafan peyveke bê naverok dibe û netewên Îranê jî her di perawêzê de dihêle.

Em di salvegera Roja Xwendekar de rêzê li hemû xebat û qurbanîdanên van keç û xortên welatparêz digirin û em piştgiriya xwe li berxwedana wan radigehînin. Em silavan dişînin bo xwendekarên netirs û biwêr ku niha di girtîgehên bednav ên rejîma Komara Îslamî de ne û kiryarên rêjîma Komara Îslamî ya Îranê û hêzên serkutker ên wê derheq daxwazên rewa yên xwendekaran mehkûm û şermezar dikin.

Serkeve xebata azadîxwazane ya xwendekaran û hemû tex û qatên civakê li dijî dîktatoriya Komara Îslamî

Neman ji bo rêjîma dijî azadî ya Komara Îslamî

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê**
**Partiya Azadiya Kurdistanê**
**02.12.2009**
**11.09.1388**

## Di Salê De 200 Kes Ji Ber Teqîna Mayînan Li Parêzgehên Rojavayê Îranê Dibin Gorî



**Agirî:** Meha Kanûnê di dîroka karûbarê mayînan di cîhanê de meheke giring tê hesibandin, ji ber ku di wê mehê de û di sala 1997an de, Peymana Qedexekirina Bikaranîn, Enbarkirin, Berhemanîn û Veguhastina Mayînên Dijî Kesî û Jinavbirina wan ku wek Peymannameya Otawa hatiye naskirin û herwiha di 3ê Kanûna 2008an de Peymannameya Qedexekirina Bombeya Hişûyî hat ragehandin. Ev her du peymanname wel destkevtên giring ên mirovahiyê tên hesibandin.

Ligel vê çendê ku her sal di cîhanê de tenê 100 hezar mayîn tên rakirin, lê li gor karnasan, hilgirtin û paqijkirina hemû mayînan di asta cîhanê de hezar sal demê dixwaze. Hat ragehandin ku di her 20 deqîqan de, mayînên binerd li cîhanê dibin sedema kuştin û birîndarbûna mirovekê.

Nûnerê Merîwanê li Meclîsa Şêwra Îslamî a Îranê Îqbal Mihemedî, di hevpeyvîneke de ligel Ajansa ILNA eşkere kir, di salê de bi sedema teqîna mayînan di 5 parêzgehên Rojavayê Îranê de 200 kes tên kuştin û birîndarkirin. 4 parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê û Xozistan ev 5 parêzgehan pêk tînin. Piştî derbazbûna 20 sal bi ser kutabûna şerê Îran û Îraqê, hêşta çend hezar hektar erdê mayînrêjkirî li 4 parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê nehatiye paqijkirin û berdewam xelkê sivîl dibe gorî.

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên ”Agirî” re

**Ebdullah Hicab**



# Yek Li Nal Û Yek Li Bizmar

Kes an aliyên ku heta niha jî guman hebin mebesta Komara Îslamî ji projeya atomî tenê bidestxistina enerjiya aştiyane ya navikî ye, bi tenê xwe dixapînin. Rêjîma têniyê şer û şiltaxiyan, ku hertim xêr û xweşiya hevwelatiyan dike qurbaniyê pilanên xwe yên zêdegav li dijî aştî û aramiyê, bi dev û dest hewl dide ku di warê navikî de xwe çiqas zû ye pir çek bike. Lewma em dibînin ku hevdem digel pêşxistina projeya xwe ya bi navê enerjiya navikî, şêweyên nû yên roketên leşkerî diceribîne ku hem bi hêz in û hem jî pir modern.

Weke ku çawan ev yek bes nebe, bi ser de jî manovrên nû yên serbazî dide û Besîc û Pasdaran ji bo dijberiya bi dijberan re amade dike. Hemû ev pêngav jî nîşan didin ku Ehmedînijad xwe ji bo ”qoçanê”yek nû amade dike. Lê Komara Îslamî, ji bo ku xwe nexe bin zexta navneteweyî, ev demek e ku bi ”çend zimanan” bi civaka cîhanî re diaxive.

Niha ji bo ku ev gavên bi tehlîke, dijkiryarên tund li hember xwe çê nekin, yan ji bo ku wan gavan hem destkevt hebin û hem jî dijkiriyara civaka cîhanî li hember rêjîmê çê nekin, dewleta Ehmedînijad bi zanebûn her carê bi zimanekê diaxive û hertim bi navên cuda û bi hêcetên cuda aliyek ji bernameya xwe ya Etomî tîne rojevê.

Ji aliyekê ve rêjîm basî diyalog û lihevhatina li ser projeya atomî dike, ji aliyekî din ve basî hêza xwe ya leşkerî û derfetên xwe yê tolhildanê tîne rojevê. Ji ber ku naxwaze bi eşkere li ser yek xetê bimeşe, hewl dide bi lîstokan zêde demê qazanc bike û di dawiyê de bikeve rewşekê ku êdî her alî hebûna wê, weke ku heye, bipejirînin. Lewma hem basî diyalogê dike û hem jî bi îsrar li ser projeya xwe ya atomî kar dike. Xuya ye heya niha hin destkevt jî bi dest xistine û gefên nû ji bo avakirina 10 navendên din yên meyandina Uraniyûmê jî, beşek ji wê siyasetê ye.

Ne ciyê baweriyê ye ku pisporên navneteweyî an siyasetmedarên ku cîhana îro birêve dibin hin qas ne şareza bin ku bawer bikin hemû warên bernameya atomî ya Îranê bi eşkere tên dimeşandin. An ku Komara Îslamî tenê weke dijkiriya li hember biryara Konseya Biryarder ya Ajansa Navneteweyî ya Enerjiya Atomî (IAEA) ji nişka ve biryar daye ku bê û 10 navendên nû yên meyandina Uraniyûmê ava bike. Pilan û pirojeyên wiha bi salan kar û pilansazî dixwaze. Heta dûr nîne ku ji wan 10 navendên ku ev çend rojin bas jê tê kirin, gelek ji wan amade bin û bi dizî, li eşkevtekê an di binê çiyayekê de bixebitin.

Gefên nû yên Îranê nîşan didin ku birêveberiya Xameneyî û Ehmedînijad projeya xwe ya atomî ber bi qonaxa dawî ve dibe û li benda derfetekê ye heya xwe weke hêza nû ya atomî ya cîhanî bide nasandin. Pirs tenê ev e ku gelo ev roj zû tê an dereng. Lê dê bê.

Di wê navberê de helwêsta Ajansa Enerjiya Atomî li ciyê ku pêşiya siyaseta Komara Îslamî bigre, ji xwe dibe alîkar ku rêjîm hê pitir bikare manovrên siyasî bide. Ajansa Enerjiya Atomî gelek bi nezelalî tev digere û her roj li ser hewayekê helwêstê digre. Carna Muhemed El Baradeî dibêje Komara Îslamî hemû kartên projeya atomî danîne ser maseyê. Carek din her ev bi xwe tê û eşkere dike ku dubare hin aliyên veşartî yên bernameya atomî ya Îranê eşkere bûne ku nîşan didin Komara Îslamî hê her tiştî zelal nekiriye. Ev nîşaneyên bi guman, alîkariya rêjîmê dikin pitir demê bi dest bixe û weke bi xwe dixwaze projeya xwe ya atomî pêşve bibe.

Siyaseta zêdexwazî a Komara Îslamî bi têra xwe bes e ku tu gumanê nehêle mebesta wê ji projeya atomî çi ye. Desthilatdarên Tehranê, ne ji bo bipêşxistina îdealên mirovatiyê û ne jî ji bo xurtkirina mafê kom û grûpên bê maf, lê ji bo xurtkirina dijberiyê li navbera gelan, li hemû goşeyên cîhanê grupên tundajo xurt dike. Kultûra siyasî ya ku îro bi destê Komara Îslamî tê bi pêş xistin, zemînê amade dike ku beşek ji mirovatiyê bike qurbanî heya desthilata Ayetullahan di cîhanê de bibe serdest û serwer.

Komara Îslamî dixwaze Îsraîlê ji holê rake, Misilmanên Sunne ji desthilatê dûr bixe, Olên din bike êxsîr û bindestê xwe, cudabîran ji holê rake, Kurd û neteweyên din yên Îranê ji desthilat û mafên siyasî, kultûrî û birêveberiyê bêpar bike û Îranê bike cemserek nû ji bo şeklek nû ya desthilata olî. Dema ku ev dîtin bi çekên atomî bê pirçekkirin, dê di serî de asayiş û ewlekariya gelên Îranê û bi wê rê jî girêdayî asayişa hemû Rojhilata Navîn û ya cîhanê bikeve metirsiyek cidî.

Bi taybet dema mirov temaşayî dosya




**Ne ciyê baweriyê ye ku pisporên navneteweyî an siyasetmedarên ku cîhana îro birêve dibin hin qas ne şareza bin ku bawer bikin hemû warên bernameya atomî ya Îranê bi eşkere tên dimeşandin.**

Îranê di warên dan û standinan de bi rexnegirên xwe re dike ev metirsî hê zêde xuya dike. Îrana li bin desthilata Ayetullahan, heya niha nîşan daye ku bi dil dixwaze bi her awayî ku bibe, kesên ku bi awayek din difikirin an siyaseta ku bi îdeolojiya wan re hev negre, bi riya fîzîkî ji holê rake. Şerê li hember gelê Kurd, çêkirina aloziyên li welatên cîran û xurtkirina torên terorîstî li hemû cîhanê, tenê goşeyek ji wê siyasetê ne.

Berevajî zimanê nerm yê dîplomatîk ku ev demek e hin dîplomatên Îranî carna di sazî û dezgehên navneteweyî de bi kar tînin, armanca sereke ye Îranê ev nîne ku bi riya diyalog û danûstandinan arêşeyên xwe bi cîhanê re çareser bike. Îran dixwaze bi hêza leşkerî siyaseta xwe ya zêdegav di asta navneteweyî de bi pêş bixe. Lewma rêjîm di pêşvebirina bernameya atomî de bi îsrar diçe pêş, lê di haman demê de jî basî diyalogê dike.

Dema mirov temaşeyî warên din yên siyaseta Komara Îslamî dike, hê pitir xuya dike ka ji ber çi Îran di projeya xwe ya atomî de ha micid diçe pêş. Pilana damezirandina torek xurt ya dijberî sîstema lîberal ku dixwaze derfetên wekhev ji takekesan re biafirîne, beşek ji siyaseta Komara Îslamî ye. Weke beşek ji pilana bipêşxistina wê projeyê, ev demek e rêjîm bi navê avakirina nexweşxane û ciyên xizmetguzariyê li welatên cuda cuda yên cîhanê, hebûna xwe bi xurtî nîşan dide.

Niha li gelek welatên Amerîka Latîn û Afrîqa, li Lubnan û hemû herêmên Şîe lê dimînin, projeyên "xizmetguzarî" yên Komara Îslamî hene. Balkêş e ku hemû ev proje ji aliyê wan şirketan ve têne sazkirin ku xwediyê wan Sipahê Pasdaran an weqf û Bunyadên cihê rengên rêjîmê ne. Ji ber wê hindê bi eşkere xuya ye ku di bin navê wan projeyan de çiqas torên sîxuriyê hatine avakirin û her yek ji wan bi çi awayî û ji bo çi mebestekê ji bo rêjîmê kar dikin.

Îdeolojiya navtêder (provokatîv) û xurtkirina rêxistinên tundajo û şerxwaz li welatên cîran û di asta cîhanî de, eger xwe serî xwe bi qasî projeya atomî bi tehlîke nebe, kêmtir jî bi tehlîke nîne. Ji ber ku ewlekariya cîhanî bi tenê bi çekên atomî nakeve metirsiyê. Dema torên cuda yên terorê li hemû cîhanê hatin damezirandin, êdî tu kes nikare xwe di asayişê de bibîne.

Di rewşek wiha de, Komara Îslamî çi navendên nû ji bo meyandina Uraniyûmê ava bike û çi neke, tiştekê naguhere. Her roja ku derbas dibe, pêngavekê rêjîmê pitir ji hêza leşkerî ya atomî nêz dike. Ji bo rawestandina Komara Îslamî, îro na, heta duh jî dereng bû. Ger cîhan dixwaze bi aştî û tenahî bijî, ne pêwîst e yekê li nal û yekê li bizmar bixe...



# Sekreterê Giştî Yê PDKÎ Nameyek Bo Sekreterê Giştî Yê Neteweyên Yekbûyî, Ban Kî Mon Şand



**Serokê Neteweyên Yekbûyî**
**Birêz Ban kî Mon!**

Wek hûn haydar in rejîma Komara Îslamî a Îranê ji destpêka hatina serdesthilata xwe di sala 1979’an de, li ser bingeha ferq û cudahîdanan û binpêkirina mafên mirovan hatiye pêkanîn. Di bin desthilata vê sîstemê de, her kesek ku biçûktirîn ferq û cidahî bi desthilatdar û rayedarên vê rejîmê re hebe, bi hemû awayekê tê cezakirin.

Pêvajoya han di heyamê 30 salên derbasbûyî de roj li pey rojê tuntir û dijwartir bûye û gihîştiye astekê ku piştî nerazîbûnên xelkê derheq encamên hilbijartina gera 10’mîn a Serkomariyê di 13’ê Hezîrana 2009’an de, bi dehan kes hatine kuştin, bi hezaran kes rapêçî girtîgehan kirine ku bi tundtirîn û hovanetirîn îşkenceyan berbirû ne. Niha jî hejmarek zêde ji wan her di girtîgehê de ne.

Di doma van tepeserî û zulm û zoran de, gelê Kurd di Kurdistana Îranê de tevî stem, givaş û tepeseriya çend qatî berbirû ye. Bi awayekê ku hejmarekî zêde ji wan bi hicetên derewîn, bi cezayên demdirêj yên girtîgehê, û herwiha hejmarek ji wan jî bi îdamê hatine mehkûmkirin. Di vê navberê de Ihsan Fetahiyan xortê 27 salî yê xelkê Kirmanşanê, roja 11.11.2009’an, di girtîgeha bajarê Sine de hat îdamkirin û yên mayî jî li benda birêveçûna hukmê îdamê ne. Eva jî xêncî wan îdaman e ku di çend salên derbasbûyî de li ser hejmarek zêde ji keç û xortên gelê Kurd birêve çûye.

Gelên Îranê bi giştî û gelê Kurd bi taybetî li ser vê baweriyê ne ku welatên Ewropayî û Amerîkayî di vê rewş û zirûfê de tenê di hewla vê yekê de ne ku bi her terzekê be nemaze bi îmtiyazan jî be, desthilatdarên Tehranê razî bikin ku dest ji mehandina Uraniyûmê berdin. Lewra givaş xistina ser Îranê bi merema parastina mafê mirovan di vî welatî de, ji aliyê wan ve hatiye piştguhxistin yan jî bûye meseleyek bê pûte.

Di encam de, Komara Îslamî bêy tu astengî û berbestekê, dest avêtiye kuştin û azardana keç û xortên Îranê û bi taybet yên Kurd. Lewra niha çavnihêriya gelên Îranê ji Rêxistina Netewên Yekbûyî ev e ku rêyekê bigre pêşberî xwe ku bibe sedema vê ku:

- Pêşiya domandina îdamkirina wan ciwanan bihê girtin.
- Ew girtiyên ku heyamekî dirêj e di girtîgehê de ne, serbest bihên berdan.

**Serokê birêz!**

Em bi hêvî ne ku hûn di vê derheqê de gavên micid û bilez bavêjin û canê van bêguneh û bêtwanan rizgar bikin.

Nav û nîşanên hejmarek ji van girtiyên siyasî yên kurd ku bi girtîgeha demdirêj hatine mehkûmkirin, tevî lîsteya hejmarek ji wan kesên ku hukmên îdamê li ser wan hatiye dayîn, bi cuda tevî vê nameyê pêşkêşî we yê rêzdar tê kirin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**

**Biryarnameya Komîteya Sêyem,**

# Peyamek Din Ya Cîhanî Bo Rejîmê



**Selîm Zencîrî**

Sê dehsalên desthilatdariya Komara Îslamî, tejî ye ji zulm û zor, cinayet, çewisandin û tepeserî. Rejîmê li hemberî her terze bidenghatin û nerazîbûnek xelkê de hovîtiya xwe ya herî xurt li dijî xelkê bikar aniye. Bi awayekê ku gelên Îranê heya niha nirxek yekcar zêde di vê derheqê de dane. Lê ya girêng ev e ku tim dara şidet, tepeserî, givaş û cinayetên Komara Îslamî meywe û berê berxwedan û xebata gelên Îranê girtiye.

Piştî Şanogeriya bi nav hilbijartinên gera 10'mîn a Serkomariyê, xebata xelkê Îranê xurttir û derbasî qunaxek nûtir bû. Êdî taboya tirsa xelkê şika û nerazîbûn zêde bûn. Lê li hember van bizavan jî zehmet e rejîmek hov mîna Komara Îslamî bikare bêdeng bimîne û şahidê jinavçûna xwe be. Lewre bilez pêlek din ji givaş, tepeserî, girtin, îşkence, destdirêjî û ...bo ser xelkê da destpêkirin ku dengvedan û rengvedanek berfireh di medya û navendên cîhanî de hebû û heya qasekê karî bala raya giştî ya cîhanê bo ser cinayet û riftarên nemirovane yên rejîmê rakişnîne. Lê eva jî ne tenê nebûye sedema desthilgirtina rejîmê ji liv û riftarên nemirovane yên xwe, ji ber ku bo çavtirsandina xelkê û aramkirina rewşê, lezgîniyek pitir da pêvajoya îdam, girtin û tepeseriyên xwe ku heya niha jî berdewam e, û bi vî awayî dixwaze heyf û tola xwe ji xelkê bêguneh bistîne û rewatî û mana desthilata nerewa ya xwe misoger bike.

Lê li hemberî van kiryarên rejîmê de me dît ku nigeraniyên cîhanî zêde bûn û berevajî rabihorî ku pirsa navikî di ewlewiyetê de bû û bal bi ser hemû pirsên din yên navxweyî yên Îranê de kişandibû, lê vê carê binpêkirina mafê mirovan jî hevdem ligel pirsa navikî bûye cihê bas û nîqaş û nigeraniyê.

Li çarçoveya van nigeraniyên cîhanî derheq rewşa navxweyê Îranê û pêpeskirina eşkere ya mafê mirovan ji aliyê rejîmê ve, Komîteya Sêyem ya Rêxistina NY, roja Înê 29' Xezelwera 1388'ê Rojî (20'ê Mijdara 2009'an) bi derkirina biryarnameyekê, tepeserkirina xelkê û binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Rejîma Komara Îslamî ve mehkûm kir û nigeraniya kûr ya xwe jî li hember van kiryarên rejîmê nîşan da û têde çend rasparde û daxwazî bo dawîanîna bi



**Komîteya Sêyem ya Rêxistina NY, roja Înê 29' Xezelwera 1388'ê Rojî (20'ê Mijdara 2009'an) bi derkirina biryarnameyekê, tepeserkirina xelkê û binpêkirina mafê mirovan ji aliyê Rejîma Komara Îslamî ve mehkûm kir**

rewşa heyî û herwiha destdirêjiya bo ser maf û kerameta mirovî, raberî Komara Îslamî kirin.

Biryarnameya mehkûmiyeta Îranê ku ji aliyê welatê Kanadayê( Piştî kuştina Zehra Kazimî li sala 2003'ê ve ev kare girtiye stûyê xwe) ve hatibû pêşniyar amade û kirin, pêşkêşî Komîteya Sêyem a Rêxistina NY hate kirin ku bi piraniya dengan anku 74 dengên **Erê**, 48 dengên **Na** û 59 dengên **Bêalî** hate pesendkirin. Ya ku cihê lêfikirînê ye û vê biryarnameyê ji yên berê cuda dike, lehn û gotina tund ya biryarnameyê ye ku bi awayek micid daxwazê ji Komara Îslamî dike ku dawiyê bi vê rewşa dijwar û bi azar bîne. Herwiha cudahiyek din ya vê biryarnameyê eva ye ku Erebistan weke welatek Îslamî berevajî salên borî, deng bi pesendkirina biryarnameyê daye. Yên ku li dijî vê jî deng dane û mora erêkirinê bi ser kar û kiryarên dijî mirovî yên Komara Îslamî dane, piraniya wan di welatê xwe de xwediyê rejîmên şibê Komara tepeserkar a Îslamî ne û dûratî û navberek zaf tevî buhayên demokrasiyê hene. Lewre nabe mirov çavnihêriyek zêde ji wan welatan hebe.

Di beşek din ji vê biryarnameya mehkûmiyetê de, bi eşkere ji Komara Îslamî dixwaze ku dawiyê bi pêpeskirina mafên mirov, girtin, îşkence, azardana çalakên sivîl, xwendekar, rojnamevan û...wd bîne û girtiyên xwediyê bîr û rayên cuda serbest berde. Herwiha daxwazê ji Serokê NY dike ku di civîna pêşerojê de ji bo endamên vê rêxistinê eşkere bike ku Komara Îslamî heya çiqas rêz ji mafên mirov digre û gelo di piratîk de kakil û naveroka vê biryarnameyê berçav girtiye yan na? Herwiha daxwaz dike ku Îran izna sefer û lêkolînan bi nûçegihanên taybet bi mafên mirov an bide ku girtîgehên Komara Îslamê bibînin û lêkolînan li ser dosyayên weke zîndan, îşkence, îdam, girtin û ..wd encam bidin. Di beşek din ji vê biryarnameyê de îşare bi liv û lebatên pir ji ferq û cudahî ji aliyê Komara Îslamî derheq kêmaniyên netewî û ayînî hatiye kirin û daxwazê dike ku Komara Îslamî bi lezgînî dev ji van riftarên pir ji ferq û cudahî û pêpeskirina mafên kêmaniyên neteweyî berde û li ser sozên xwe derheq parastin û rêzgirtina mafên mirov de pabend be.

Bi giştî derkirina biryarnameyk wiha girîng, ji çend aliyan ve girîngi ya xwe heye:

- Nigeraniya civaka cîhanî ji vê rewşa bi êş û azar ya hundurê Îranê û tepeserkirinên hovane yên Komara Îslamî nîşan dide.
- Teibîr ji yekîtiya civaka cîhanî li hember rejîma komara Îslamî dike.
- Peyamek tund e bo desthilatdarên Îranî ku civaka cîhanî bi hûrî çavdêriya kar û kiryarên hovane yên wan derheq xelkê dike û dide zanîn ku êdî xelkê Îranê di xebata bo maf û azadiyê de bi tenê nine.
- Cihê dilxweşî û hêviyê bo hemû azadîxwaz û çalakên mafên mirov û bi taybet Opozîsyona Îranê ye û di egera berdewamiya vê rewşê de(ku bêguman dê bidome), dikare rêyê bo gellek helwest û biryarên din xweş bike.

# Besîc Hêza Qirker Ya Viyana Neteweyên Îranê



**Azad Kurdî**

Pêkhatina Hêza Besîc bi fermana rêber û avakerê Komara Îslamî a Îranê Xomeynî, di Mijdara 1980an de, mekanîzmek bû ji bo zêdekirin û xurtkirina tundûtûjî û sepandina rewşa leşkerî di seranserê Îranê de. Damezrandin û rêxistina wê hêzê di çarçova Sipaha Padaran de fikr û ramaneke îdeolojîk ya Komara Îslamî bû, ji bo ku wek hikûmeteke îdeolojîk a olî berevajî sirûşta pêkhateyên civakên demokratîk û hemdem alîgirên zêde ji bo rojên tengayiyê li dora xwe kom bike. Şêweyê pêkanîn û qonaxên xurtbûna Hêza Besîc digel hemû bingeh û pîvanên avakirina hêzekê di welatên demokratîk û pêşverû ên cîhanê de cuda bûye. Piştî îstiqrar û cihgirbûna desthilata dîktatorî a rejîma Komara Îslamî, çendîn hêzên cuda cuda bi navên cihê pêk hatin; ku armanca Komara Îsalmî ji damezrandina wan hêzan, kontrol û çavdêrîkirina rewşa hundirê welat û rûbirûbûn ligel hemû nerazîbûnek xelkê û tevgereke azadîxwazane û demokrasîxwaziyê di Îranê de bû.

Bi piştgiriya dîktatoriya Wilayeta Feqîh, bi awayekî ecêb û berfireh û bi îmkanateke bê mînak, starta ferman û biryara Xomeynî derbarê xurtkirin û berfirehkirina Hêza Besîc di hundirê



**Li Îranê Zarokên kêmtemen jî di Hêza Besîc de dikin endam û îdeolojiya Wilayeta Feqîh a Komara Îslamî fêrî wan dikin.**



**Li Îranê xwendekar tên neçarkirin ku bibin endamê Hêza Besîc û li cihê zanistê, di navendên leşkerî yên Besîc û Sipaha Pasdaran de wan hînî bikaranîna çekan dikin.**

civakê de hat destpêkirin. Desthilatdariya Wilayeta Feqîh bilez dest avêt pêkanîna dezgeh û navend û binkeyên Becîsan li cihên giştî, bi taybet di mizgeft, îdare, zanîngeh û xwendingehan de û dixwast di piraniya cihên giştî de hindî çêbe navendên sîxorîkirin û leşkerî ên Besîcan cihgir bike. Rêveberên fermana Xomeynî di fikra xewna çêkirin û bicîhanîna 'Hêza Besîc a 10 milyon kesî' de bûn! Di demeke kurt û kin de Hêza Besîc ket bin çetr û rikêfa hêza leşkerî a serkutker ya bi navê Sipaha Pasdarên Şoreşa Îslamî û bi awayekî fermî bû yekeyek leşkerî û bi vê rêyê ve bi taybet rewşa navendên xwendin û fêrbûnê ber bi etmosfera leşkerî birin.

Gelek îmkanat û derfet xistin pêşberî van dezgehan û herwiha îmtiyaz dan Besîcan, ji bo ku bikarin rêxistinên xwe bihêz û berfireh bikin û ciwanan ber bi aliyê xwe rabikşînin ku bibin alîgirê dewletê. Berevajî welatên demokratîk ku hêz û şiyana ciwanan bo aliyê zanist û perwerdeya akademîk ji bo pêşvebirin û nûjenkirina civakê tê rakişandin, di Komara Îslamî a Îranê de endambûn di Hêza Besîc de û dîtina dewreyên îdeolojîkî û fêrkirina dewreyên taybet bo fêrbûna çekên cur bi cur û sîxorîkirin û ajaniyê û herwiha berengarîkirin digel meş û tevgerên nerazîbûnê hundirê welat û wd.. wek nirx û bihayên civakî hatine hesibandin û ji bo vê armancê jî îmkanateke herî zêde a darayî û manewî xistine ber destê wan da ku bi başî karê xwe bimeşînin.

Heyamê sî sal dibe mizgeft, dibistan û zanîngeh û heta gund bûne cihek bo proseya endamgirtina xelkê û bi giştî bi taybet ciwanan bo nav refa Hêza dijî gelî ya Besîc û ji bo mayina li ser desthilatê, hemû fend û fêlek ji bo xapandina ciwanan di çarçoveya Hêza Besîc û hêzên din ên bi vî awayî mifahê werdigrin, ji bo ku bi vê rêyê xelkê li dijî hev hay bidin û bi hêsanî dengê azadîxwaziya netewên Îranê bifetisînin. Amadebûna Besîciyan bi kincên şexsî di hundirê xelkê de di dema xwenîşandan de û kuştin û qirkirina xelkê nerazî û azadîxwaz, erkeke sereke ye ku bi Hêzên Besîc hatiye sipartin.

Di wê dem û rewşa hesas a ku Îranê têde derbas dibe, ji ber ku rejîma Komara Îslamî rastî kirîz û qeyranên mezin û cidî ên navxweyî û navneteweyî hatiye, li gor sirûştê hertimî yê Komara Îslamî di sî salên borî de, bêguman dê zêde dest bide bikaranîna hêza serkutker û xelkê qir bike, lewra erkek pir giring û dîrokî ketiye ser milê malbatan bi giştî ku bi hişyarkirin û çavdêrîkirina xwe, bi tu awayî rê nedin û nehêlin keç û xortên wan tevlî wê hêza dijî xelkî bin. Divê hewldan ew be ku pêvajoya normal û xuristî a jiyana sîîl, zanist û fêrbûn, pêşdeçûn, aştîxwazî û aramî bo nifşên pêşerojê bê ewle û dabînkirin û nehêlin kirêgirtiyên Hêza Besîc keç û xortên me bixapînin û bi endambûna xwe di wê hêzê de bibin sedem û alîkarê man û dirêjbûna temenê desthilatdariya xedar û stemkar a dîktatoriya Komara Îslamî.

# Çima Tundûtûjî?



**Hemîd Muxtarî**




**Li Îranê jin di warê siyasî, aborî, civakî, malbatî, hundurî û... de dikevin ber tundûtûjî û ferq û cudahiyan**

Di 25’ê Çiriya Paşîn a sala 1960’an de, 3 xûşkên Mîrabal bi navên **Patriya Mirsedes Mîrabal**, **Mariya Arjantîna Mînroa Mîrabal** û **Antoniya Mariya Tirsa Mîrabal**, çalakên siyasî û akinciyên Komara Dumînîkanê ku li dijî dîktatoriya **Rafaêl Tiroxiyo** xebat dikirin, ji aliyê hukûmeta wî ve tên terorkirin. Di sala 1981’an a Zayînî de, Civata Giştî a Saziya Netewên Yekbûyî 25’ê Çiriya Paşîn weke “roja cîhanî a xebat li dijî tundûtûjiyê” hilbijart û di 17’ê Çiriya Pêşîn a sala 1999’an de ew roj wek “roja cîhanî a xebat li dijî tundûtûjiyê” pesend kir.

**Pênaseya tundûtûjiyê**

Koma Giştî a Rêxistina Netewên Yekbûyî di mada 1 a daxuyaniya ji holê rakirina tundûtûjî li dijî jinan ku di sala 1994’an de pejirand, tundûtûjî bi awayê jêrîn pênase kiriye:

“Tundûtûjî li dijî jinan bi wateya her kiryareke tundûtûjane ye ku li ser bingeha cudahiya zayendî bê encam dan û bibe sebebê birîndarbûna laşê mirov yan êşa zayendî û piskolojîkî”.

Tundûtûjî li hember jinan dikare rê ji bo gellek xesarên civakî vekirî bike û malbatê bixe metirsiyê.

Tundûtûjî li dijî jinan ji welatekê bo welatek din bi ferq e û zêdetirîn goriyên tundûtûjiyê di welatên cîhana sêyem de ne. Welatên ku di warê aborî, zanistî û kultûrî de paş demayî ne û regeza nêr wek mirovek xwedî maf mêzeyî regeza mê nake. Di wan welatan de tundûtûjî wek metodekê bo bihêzragirtina û domandina desthilata regeza nêr bi ser regeza mê tê bikaranîn.

**Tundûtûjiyên li dijî jinan di Komara Îslamî de**

Di Îrana jêr desthilata Komara Îslamî de jin bi tevahî dikevin ber tundûtûjiyê û yasaya vê rejîmê piştevanek e bo encamdana kiryarên tundûtûjê li hember jinan. Di îdeolojiya desthilatdarên rejîma Komara Îslamî a Îranê de jin wek mirovek ku fehm bike nahê mêzekirin, belku wek kesek nekemilî dinêrine jinan. Lewra di yasaya bingehîn a vê rejîmê de bi dehan madeyên yasayî hene ku tekezê li ser binpêkirina mafê jinan dike û bi çavek pirr ji ferq û cudahiyê temaşeyî wan dike. Bo mînak di yasaya rejîma Komara Îslamî de, di dadgehê de şahidî dana 2 jinan beramber e tevî Şahidiya mêrekê. Herwiha mafê mêr ji milk û malkên dê û bav 2 hemberî mafê jin e. Mêr mafê vê yekê hete ku heya 4 jinan bîne. Hebûna biryara kevirbaranê ku yek ji şêwazên herî hovane a kuştina mirvan e û mirov heta navêre hizra wê jî bike, diyarîkirina cezayê kêm ji bo kesên ku jinên xwe bi hêceta parastina namûsê dikujin anku kuştinên namûsî. Li Îranê jin di warê siyasî, aborî, civakî, malbatî, hundurî û... de dikevin ber tundûtûjî û ferq û cudahiyan, dema ku jinên azadîxwaz li hember wan ferq û cudahiyan dengê xwe bilind dikin, hêzên Komara Îslamî bi awayên hovane tevî wan tevdigerin û wan dikin zîndanê û dixin bin îşkenceyên nemirovane û heta gellek caran bo Şikandina kesayetiya wan, destdirêjiya seksî dikin ser wan û fîlmê ji wê kiryara bigemar hildigirin. Piştre jî gefê li wan jinên azadîxwaz dikin ku ger carek din nerazîbûna xwe diyar bikin, dê fîlma hilgirtî belav bikin û kesayetiya wan bişkînin. Di çarçoeya malbatê de jî jin herdem ji aliyê mêrên xwe ve dikevin ber lêdan û kutanê û jin tu piştevanek di civakê de nîne ku penahê jêre bibe. Di rastî de di Îranê de tundûtûjî li hember jinan bi tevahî ji aliyê dewletê ve tê piştevanîkirin û jinên ku dikevin ber tundûtûjiyê tu rêyekê helatinê nînin. Mixabin encamdana kiryara tundûtûjiyê di nava malbatê de ku kultûrek gellek paremayî ye, ji nifşekê bo nifşekê din jî tê veguhastin. Çimku xort şahidê tundûtûjiyê li hember dayîkên xwe ne. Lewra dema ku mezin dibin û dizewicin bo çareserkirina pirsên xwe dest diavêjin kiryara tundûtûjiyê. Keç jî dema ku dibînin diya wan çawa li hemer lêdan û kutana bavê wan bêdeng e, dema ku dizewicin, ew jî li hember lêdan û bêhurmetiyên hevjînê xwe rêya bêdengiyê hildibijêrin.

Herçend ku seba nihênîbûna çarçoveya malbatê di civakê de, serhejmariyek rast û cihê baweriyê derheq tundûtûjiyê li hember jin û keçan di Îranê de tune, lê kêm keç û jin di Îranê de hene ku ji aliyê bav, bira, pismam, mam, xal, mêr û... neketibin ber metodên cur bi cur ên tundûtûjiyê.

Jin nîva civaka mirovahiyê pêk tîne. Tundûtûjî jî sûç tê hesib andin û riftara tundûtûjane a mirovekî tevî mirvek din mehkûm e û her mirovek kemilî vê yekê fehm dike û dizane û giştî xelk tundûtûjiyê mehkûm dikin, ji teorîsiyenên akademîk ve bigire ku bi teoriyên cur bi cur ên feminîstî vê kiryarê mehkûm dikin heta digîje xelkê kolan û bazaran, lê çima dîsan tundûtûjî her berdewam e.

Di warê civaknasî de em dikarin bibêjin ku di kiryara tundûtûjî derheq jinan de hem civak, hem dewlet û hem beşek ji jinan bi xwe tawanbar in. civak seba vê yekê ku paşde maye û hêj dab û edetên kevn û dûr ji eql û mentiqê têde serbest in û mêr bawer e ku desthilatdarê malbatê ew e, çimku pirraniya hewcehiyên jiyanê ew dabîn dike, lewra ev maf heye ku serpereştiya giştî endamên malbatê bike. Herwiha bi baweriya wan jin namûsa wan e lewra divê bi tevahî bikeve jêr çavdêriyê. Dewlet seba vê yekê ku ne tenê hewl nedaye di civakê de çandek nû ava bike û civakê ber bi pêşve bibe, belku bi cîbicîkirina wan yasayên pesendkirî ên paremayî civak ber bi paşve biriye/dibe û piştevanek rastîn e ji bo encamdana tundûtûjiyê ji rêya ew desthilata ku heye. Herwiha beşek li jinan jî tawanbar in, çimku ew li hember tundûtûjiyê xwe bêdeng dikin û tu gilî û gazindeyekê nakin û heta bi curekê berheqbûnê didin vî karî.

Bi hêviya wê rojê ku ne tenê li Îranê belku li giştî cîhanê tundûtûjî bê ji holê rakirin û her cure îşkence û êşandin û eziyetkirina jinan bi dawî were û qetlên namûsî nemîne û wek mirovk mêzeyî jinan bê kirin.

# ŞERKARÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Taybetmendiyên herî balkêş û berbiçav ên şer û pevçûnên ku beriya niha bi hezaran sal dest pêkirine, bi hemû stemkariya xwe îro jî didomin. Ji wan taybetiyan yek jê ew e ku di her heyn û demên dîrokî de gelên cîhanê li hember hev û din hatine rawestandin, kuştin û qirkirin.

Hemû şer û pozberiyên navbera gelan her gav bi destê hêzên serdest û zoran pêk pêk tên/hatine. Di şerên kirêt ên levpar de, ne pêkan e ku sûd, fêde û berjewendiyên gelan hebin. Çimkî ji do heta îro çi şer û pevçûnên ku pêk hatine - şer têkoşînên neteweyî ne tê de- hemû bi mebesta parvekirina dinê û talankirina dewlemediyên sererd û binerd ên welatan hatine lidarxistin. Çek û amrazên şer ên erjeng, kujende û wêranker, tev di xizmet û suxreya berjewendiyên hêzên zoran û serdest de têne bikaranîn û xebitandin. Her çeka ku tê dahênandin bi hemû kujdariya xwe li ser gel û neteweyên bindest û zêç û zarokên wan ên bêrî û mezlûm têne ceribandin.

Bo nimûne; di 16'yê adara 1988'an de li Helebçeyê bombeya gazîn bi ser zêç û zarokên kurdan de hate barandin. Di maweya çend saetan de pirên wan jin û zarok zêdeyî 5 hezar mirovên bêrî jiyana xwe ji dest dane. Ligel ku ne alîgirên şer in jî, bi giranî yên ku di şer de hatine kuştin û qirkirin, bi gelemperî jin, zarok û mirovên pîr û kal bûn. Ji bo wê, mirov dikare bibêje şer dijminê mirov û mirovahiyê ye. Heta îro di tu şeran de jî mirovên sûcdar nehatine kuştin û darizandin. Tê zanîn ku cirma şerên kirêt û levpar, her gav kesên bêsûc û bêguneh didin.

Şer, di wateyeke teng û ferhengî de ango bi awayekî kurt, wekî qutbirî û sarbûna pêwendiyên civakî û destpêka lêkdanên çekdar an jî pevçûna kes û hêzên dijber û lêkneker tê watedayin. Her wiha, wekî ceng û pevçûnên ku ji aliyê dûgel û çînên civakî de têne lidarxistin, tê ravekirin û watedarkirin.

Bi awayekî din yên ku dixwazin mexseda xwe ya aborî û ramyarî bidest bixin, şerên herêmî derdixin an jî ceng û pevçûnên navneteweyî li dar dixin. Şer car caran wekî têkoşîn û çalakiyên çekdarî jî tê binavkirin. Belê wate û raveya şer çi dibe bila bibe, bi hezaran sal e ku ew, ji aliyê kesên mirovhez û aştîxwaz ve wekî dijminê jiyana mirovahiyê yê qedîm û kevnar tê dîtin û nasandin. Bi kurtayî şer; êş, azar û rûxandin bi xwe ye.

Ji roja ku mirovahî nasdarî jiyanê bûye û heta îro, şer û pevçûnên navbera mirovan (êl, çîn û netewan) bê navber didomin û dixuye dê hê jî pir bidomin. Gelo heta ku ev şer û pevçûnên hovane yên ku di navbera mirovan de ji holê ranebin dê çi sûda teknolojiyê û wateya hilpekandina fezayê(ser hîv û stêrkan) hebe ? Gelo heta ku mirovahî perwerde nebe, dê çi fêda mar û dûpişkên kedîkirî li xwezayê bibe?

Cîhana hemdem xwe di her warî de şareza û pêşketî dibîne. Hemdemî, kirûyeke girîng û watedar e. Mirovên hemdem ne tenê ew kesên hemsal an jî di heman demê de bi hev re dijîn in. Hemdemî, tenê ne parvekirina heman sererd û serdemê ye jî. Hemdemî, parvekirina xwezayeke bêsînor, cîhaneke bêşer û jiyaneke bêtirs e. Di serdemên kevnar û xwezaya ciwan de mirovan xwe ji lawirên hov û êrîşkar diparastin. Belê îro, di cîhana hemdem de mirov (lawir jî) xwe tenê ji mirovan diparêzin. Gelo tiştê ku mirov ji hemû giyaneweran tirsnaktir û xetrnaktir dike çi ye ? Gelo sedema ewqas şer û pevçûnên bêrawestan çi ye ? Gelo ewqas kuştin û girtin, talan û komkujî ji bo çi ye? Mirov dikare pirsan zêde bike belê, bi baweriya min, bersiva wan yek e: Ezîtî û çavbirçîtî.

Xweza, bi qasî 6-7 milyar mirov û dîsa cend caran lê, lawir û giyaneweran têr bike comerd û adan e. Gerstêrka bi navê cîhanê jî bi qasî ku van giyaneweran li ser xwe bihewîne berfireh e. Belê mixabin, di tu dem û dewranan de jî ev cîhana berfireh û xwezaya bêsînor çavê mirovên mêtinger têr nekiriye. Ji roja ku hêzên serdest çav berdane keda mirovan û heta îro ne mirov û ne jî mirovahiyê ber xwe nedîtiye. Hêzên kedxwar û çavnebar, ji çavbirçîtî, naxwazin bi qasî misqalê zer tiştekî xwe bi mirovan re parve bikin. Belê ji aliyê din ve ew û hevkarên xwe bi şêwirdarî cîhan û xwezayê li hev parve dikin. Ev cîhana ku bi milyaran mirovên ku, ji bo berjewendiyên çend hezar kesên mêtinger dijîn, di xwe de dihewîne, heta îro ji kê re bûye bihûşt û ji kê re bûye dojeh ?

Bi rastî, îro ro ne li gorî dilê wan be jî, wan bi destê xwe alavên dojeheke ku têna wê bide laşê wan jî (çekên kîmyewî) afirandine. Ji bilî wê, êdî tu hêz nema dikarin bêyî ku xisar bigihêje wan, xisarê bidine mirovan. Ne ji ber ku ji mirovan hez dikin; ji ber ku jiyan li wan jî dibe dojeh, êdî ew jî zêde şerên giran naxwazin. Divê ev yek ji aliyê her mirov û her neteweyê ve were dîtin. Ango di mercên îroyîn de pêdiviya her hêzê û herkesî bi aştiyeke domdar û mayînde heye.

Kaniya Helbestan

## [ Ji Bîranokên Rihakirî ]




### *Çavpêketineke Mirîyan*

November 2009

Ev çavpêketineke kurt û kin bû…
Têde diho wekî pêjneke bîranînê,
wekî tabloyekî rezên nû
peldayî
di nav mijê sibeyeke
Avdarê re
bi lez û bez derbas dibe…
…û sibe, wekî pêjna yarê…
di xewneke razanên li ser pişta
xaniyan de,
di şevên havînê de,
tê û tê…
lê tew nagihîne hembêza
mirovî…
Erê, çiqas ev çavpêketin kin bû!
Wekî berkenîna nexweşekî wêranê,
Wekî maçeke bi lêvên zuwa,
Wekî silavlêkirina suwarekî bi
hespekî bezo
bo gora nasekî nav ji bîr
bûyî,
Wekî taveke barana dawiya Nîsanê,
Ku tew axa tî, pê şil nabe…
Dibêjin ku heme çavpêketin wilo bi
lez derbas dibin
Bi zûkî ji bîr dibin…
Mîna helbestên gelek hozanvanên
gorwindayî..
Hema bê guman ev çavpêketin yek ji
gişan kintir bû…
*- Gelo, tê bîra kê?*
*- Erê, tê bîra kê?*
Paş çend rojan,
Paş çend çêrokên lawaz
ên li ber pixêrekan…
Wê dost û nasan wilo ji hev
bipirsin…
Dibêjin ku axa miriyan sar e…
Ev çavpêketin jî ya kesekî bû,
ku axa gora wî ji ya gelek
dîwanên evîndariya derew sartir bû…

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

**Beşa 6**



**Çiya Mazî**

Lê Gotinên pêşiyan, ku dema têne gotin herkes lê hay dibe ku ew ji bo bûyerekê an rexneyeke ku ji herkesî re heman darizandin û hukmê çêdike tê gotin û diyar e. Heta ku bûyerek çê nebe an şîretek ne pêwist be an tiştekî bê nîşankirin tunebe, mirov dikare gotinên pêşiyan nebêje û bipeyive. Lê biwêj mirovan bêgav dihêlin ku bêne gotin. Wekî mirov ji hineken re bixeyd bibêje " law ma tu ewqas hundur reşî "*Hundurreş*" bi xwe biwêj e û di wê dîaloga bixeyd de, bi awayekî xwezayî dikeve nava hevokê.

Mînakek di nava hevokê de*:*

*"Me got emê li benda encamê bisekinin, ji ber ku hê dibistan venebûne û em nizanin em dê kîjan pirtûkan bikirin lê belê Şemdîn hê hesp tuneye alifan çêdike".*

Ev biwêj ku mirov qala karekî bike û despêkinina wî karî hê pir dûr be an hê di peyvê de be,lê mirov wekî dest bi kar bike, amadekariyan bike û li gor wê yekê tevbigere.

Dema ku ev gotin bi awayê "*hesp tunebe alifan çênekin*" bûya, wê jê re bigotana ev gotina pêşiyan e. Ji ber ku pirên gotinên pêşiyan bi hevokên raweya fermanî (emîr kîpî) hatine sazkirin. Dema dibêje "*piyên xwe li gor berga xwe dirêj bike,* di vê derê de "*dirêj bike*" lêkerek pêveber(yuklem) ya raweya fermanî ye.

Hinek Gotinên pêşiyan jî henin bi hevokên kêm, çêbûne:

*"Ava bîran bi tevdîran".* Wateya wê, divê mirov ava bîran bi tevdîr xerc bike ye. Di vê gotina pêşiyan de pêveber tune ye. Lê tê fêm kirin ku lêkera "*xerc bike*" tevlî ku tê de tune ye jî, pêveberek veşartî ye. ku mirov carek din jî taybetiyên wan bîne ber cavên xwe hê baş cûdatiya wan derdikeve holê

Gotinên pêşiyan :

**1-** Hukmî û darazî ne.

**2-** Dudu û hê pirtir wateyan derdixin (wateyên kûr û rûkalî).

**3-** Pendî ne (şîret in).

**4-** Mecazî ne.

**5-** Nivîskarê wan ne diyar e.

**6-** Qaîdeya wan î gelemperî heye.

(li her deverê wateyên nêzî hevdû derdixin û têne fêmkirin)

Biwêj

**1-** Ne hukmî û ne darazî ne.

**2-** Wateyekê derdixin.

**3-** Ne pendî ne .

**4-** Hinek jê nivîskarê wan diyar in.

**5-** Qaîdeya wan î gelemperî tune ye, pirên wan bi taybet in.

(hinek jê herêmî nin. Li her deveran nayêne fêmkirin )

**Hinek biwêj hene, li gor demê û li gor kar û têkiliya mirovan xuya dibin. Carinan hin ji van biwêjan, tenê di herêmekê de bi wate ne. Heta bi tenê di gundekî de bi wate ne. Lê dema mirov wê peyvê li derveyî wî gundî bibêje kes tu tiştî jê fêm nake.**

**Wekî :**

***"Ma çemê çeqçeqê ye çiye?",***

***"Ma kaniya mêmelaskê ye?",***

***"Mineta te li serê giharê dina be" û wd.***

*"Dawiya peyvê nayê pel hene"*

Van biwêjana li herêma Mêrdîn û Şernexê têne bikaranîn. Her yek ji wan çîrokek wan jî heye. Mînak biwêja *"dawiya peyvê nayê pel hene".* Yekî ku pelê cixareyan difiroşe, afirandiye. Dema ku diçûyî qahwexane û çayxaneyan, didît ku kes li wî guhdarî nake û herkes li lîska kaxezan hûr bûne û hinek jî ketine guftûgoyên kûr, kes jî li pelan nanêre. Îcar ku dikeve hundurê qahwexaneyê dibêje. "*dawiya peyvê nayê pel hene"* . Bi vê çîrokê ev hevok bûye biwêjek herêmî. Ku mirov dixwazin balê bikişînin ser pirsgirêka xwe vê gotinê dibêjin. Ango dibêjin "*hinekî li min jî guhdarî bikin*".Di biwêj û gotinên wiha de dîsa xuya dibe ku her yek ji wan xwedî çîrokekê ne.

Pirên biwêjan jî wekî gotinên pêşiyan bi qerfokî tê gotin û ji qerfan jî sûde wergirtine. Mînak, li pir deverên ku Kurd lê dijîn biwêjek tê gotin:

*"Xal xidiro hero li viro"*

Mînakên biwêjan wekî vê biwêjê pir in. Ev jî taybetiyek wan e, ku bi piranî bi awayê qerfî û hîcîv in. Ev taybetî jî wan navdar dikin

Mînakên biwêjan:

*"Dizan ji dizan dizî, erd û ezman pê hesiya",*

*"Berûyê ji qêlik bazda, got, devî çende ye"*

*"Silavan li Hesenê Mûsa ke"*

*"Hasil di mûsilê re derbas bû"*

**"Hesiko ji bajêr xeyîdî (fare daxa kustu)**

*"Heta we hilatî lêxist me şikeva kir (îş işten geçti*) .

Wateyên hinek biwêjan:

Agir berda kayê, xwe da ber bayê:

Agir berdide kayê, lê ji bo ba lê nere, xwe dide ber ba. Wekî karê jiyanê jî ku mirov bixwaze karekî bike lê mirov bi xwe bibe astengê wî karî.

Agir bi ser serê min ketiye, tu firîkê xwe diqelîne:

Wekî dibêje ez di tengiyê de me, lê tu alîkariya min nakî.

Aş çûye bi dû çeqçeqê ketiye:

Aş xera bûye, hê bi dû niqirandinê dikeve. Wekî mirov derfeteke mezin,firseteke mezin winda bike lê bi dû tiştekî biçûk bikeve..

Axê me om e xwelî li serê me kom e:

Wekî bibêje filankeso bû serokê me, dê xwelî li serê me be an em ne baş in ku ew bûye axeyê me.

Bejin tît e mal meçît e:

Bejin sipehî û bi bedil e lê mal tune ye. Ji bo mirovên ku tenê bedena xwe û rewşa xwe î xweşikbûniyê difikire, tê gotin.

Berû da bizinê, dest avêt qaçikê:

Wekî hê nû berû dayê,dibêje hela bê xurt bûye. Ji bo peroşî û lezkirina mirovan tê gotin.

Çûn dewsa miriyan, herkes li miriyê xwe giriyan:

Çûn dewsa miriyan, lê herkesî ew mirî ji bir kir û miriyên wan hate bîra wan,an ji bo karekî çûn lê herkes ji bo berjewendiyên xwe tevgeriyan.

Çûn welatê kera, anîn barê pera:

Wekî pere ji pişta nezanan derdikeve. Ji bo mirovên li bende fersendê û li fersendê digerin û bi ser dikevin tê gotin.

Dawiya meşkê girtiye, devê wê berdaye:

Wekî cîhê kar jê xera dibe, li ser nasekine an guh nadê, lê wekî ku nahêle xera bibe tevdigere. Ji bo mirovên ku di kar de, tiştên girîng ji bîrdikin, lê bi tiştên hêsan diştaxilin, tê gotin.

Def û zirne berdaye, bi kendalê abes girtiye:

Wekî karê ku jê re dibe nake, yê jê re nabe dike.

Eyşikê ji xwe bi şik ê:

Ji bo mirovên ji her tiştî gûmanê dikin, hatiye gotin. Ji bo mirovên bi xwe ne bawer jî tê gotin.

Ez mîr tu mîr, kî soqil hemir:

Ez mîr bim, tu mîr be, wê kî yê xebatê bike(soqil hemir, di erebî de ajotina kerê ye) Herkes bibêje ez, tevger çê nabe. Ez mîr, tu mîr, wê kî yê kerê bajo.

Hurê tenûr dada, qahpê pê veda:

wekî hurê (azad) got çi qehpê pejirand. Ji bo mirovên ku pir û bê şik hevdû diparêzin tê gotin.

Ji kîsê qirim, xweş dibirim:

Dema ji kîsê hinekî din be, mirov xweş camêriyê an mesrefê dike.

Ne fen e, ev çi dar û ben e:

Dar û ben yê xeniqandinê ne. Yê fenan bike, xuya dibe. Dema ku hinek fena xwe veşêre lê yê himber pê bihese û vê biwêjê bibêje. Çiqas bide mandelê jî, delîl heye.

Va dar, va mişar:

Her tişt li holê ye.

Wê ev hevîra, hê gelek avê hilîne:

Bûyerên demdirêj û karên demdirêj xelas dibe. Ji bo bûyerên ku hê xelas nebûye, hatiye gotin

Ku ez ciwan bûm, bi tîr û bi kevan bûm, gava ku ez pîr bûm, notirvanê şikeva hevîrbûm:

agiri

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**



# Coşên Kopaya Cîhanî Ya 2010 Ya Futbolê Dest Pê Kir




**Agirî:** Serencam çaverêbûna xelkê cîhanê derheq Kopa Cîhanî a 2010 ya Fotbolê bi dawî hat û roja 5ê Kanûna 2009an, li Afrîqaya Başûr endamên girûpan hatin diyarîkirin. Ji îro pêde heta birêveçûna Kopa 2010 li Afrîqaya Başûr, coş û heyecenên futbolê her roj zêde dibe. 32 tîmên beşdar di Kopa Cîhanî a 2010 ya Fotbolê de, bi ser 8 grûpan hatin parvekirin û taximan rikeberên xwe nas kirin. Yekemîn lîstik di navera mêvandarê Kopaya 2010 Afrîqaya Başûr û Mekzîkê dibe.

Di pêşbirkêyên Kopa Cîhanî a 2010 ya Afrîqaya Başûr de bi giştî 64 lîstik dê werin kirin û di 10 yarîgehan rêve diçin. Tê gotin zêdeyî 3 milyon kes li sernaserê cîhanê bo temaşekirina lîstikên Kopa 2010an serdana Afrîqaya Başûr bikin ku gelek sûdê dê bighîne aboriya wî welatî. Ji ber nesaxiyê Rêberê navdar yê Afrîqaya Başûr Nelso Manedela nekarî di civîna diyarîkirina endamên grûpên Kopa Cîhanî a 2010 ya Fotbolê de beşdar be.

# Coşên Kopaya Cîhanî Ya 2010 A Futbolê Dest Pê Kirin



**Agirî - VOA:** Endamên civat û komeleyên ne dewlwtî (NGO) ên çalak di warê xebat li dijî belavbûna vîrûsa HIV, li beravên deryaya Nalsarwa a Hindistanê li hev civiyan. Wan bi momên hilkirî rûbanek wek hêma û nîşana xebat li dijî vîrûsa AIDSê çêkirin. Roja yekem a meha Kanûnê wek Roja Cîhanî a Tûşbûyên Vîrûsa AIDS û xebat li dijî vîrûsa metirsîdar ya HIV hatiye tomarkirin. Ev çalakiya civat û komeleyên ne dewlwtî ên çalak li Hindistanê bi vê sedemê ye ku Hind bi nifûsa zêdeyî milyarek û 100 milyon kesî, li kêleka welatên din ên xizan û paşketî ên Afrîqa li ber xeter û metirsiya HIV ye. Li gor serjimêriyên sala 2005an, nêzîk 5 milyon û 500 hezar kes li Hindistanê tûşî vîrûsa AIDS bûne, ku ji ber çalakiyên civat û komeleyên ne dewlwtî (NGO) li wî welatî, ev statîstîk di sala 2007an de gihîşte 2 milyon û 500 hezar kesî.

# Kabîneya Dewleta Nîpalê Li Çiyayî Everestî Civiya




**Agirî – BBC:** Di dema du mehên borî de, bo rakişandina bala raya giştî ya cîhanî ber bi aliyê rewşa hewayê û nigeraniyên derbarê xwezaya dinyayê, du kiryarên ecêb û têra xwe balkêş jî li du welatên Asyayê hatin meşandin. Piştî ku du mehan berî niha, Civata Wezîrên welatê Maldîvê di binê behrê de civîna kabîneya wezîran pêk anî, vê carê û roja înê, 5ê Kanûna 2009an, Serowezîrê Nîpalê û Kabîneya Wezîrên wî welatî bi 21 wezîran ji bo ku bala raya giştî bikşînin ser metirsiyên germbûna rewşa hewayê cîhanê û pêwîstiya parastin jîngehê, li çiyayê Everestê civîna xwe ya Civata Wezîran lidar xistin. Ev civîna bi tevahî digel civînên heta niha cuda bû.

# Şeşemîn Festîvala Hêza Pêşmergê Kurdistanê Bi Dawî Hat



**Agirî:** Bi armanca rêzgirtin li 26ê Sermaweza îsal, Roja Pêşmergê Kurdistanê û herwiha nîşandana karîn û şiyana cesteyî û fikrî ya Hêza Pêşmerge, Şeşemîn Festîvala Hêza Pêşmergê Kurdistanê ji 14ê Mijdarê heta 22ê Mijdara 2009an, ji aliyê beşa perwerde a Hêza Parêzgarî û bi alîkarî û piştgiriya Komîsyona Siyasî – Leşkerî û herwiha beşên perwerdeya organên PDKÎ hat lidarxistin. Şeşemîn Festîvala Hêza Pêşmergê Kurdistanê îsal bi dirûşma 'Pêşmerge Bêhna Azadiya Jiyanê Ye' birêve çû û nêzîk 300 Pêşmerge di dema 9 rojan de, di sê warên 'fikrî, werzişî û leşkerî' de ketin kêbirkêyê.

Bi vê hilkevtê, êvariya roja şemî 6ê Kanûna 2009an, di hola civînên giştî yên PDKÎ de, rêûresmek taybet hat lidarxistin û xelatên serkevtinyên Şeşemîn Festîvala Hêza Pêşmergê Kurdistanê hatin pêşkêşkirin.